Bidestveanîna Mafên Netewî
Yên Gelê Kurd Di Çarçoveya
Îranek Demokratîk û Federalî de

Hejmar: 145
22’ê Çiriya Pêşîn a 2010
Buha: 150 Tûmen

agiri

Duheftînameya siyasî, civakî, çandî û hunerî

Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne

**Heft Stêrkên Wundabûyî**

Roja 27.7.1375 a Rojî, 7 xebatkarên Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê, ji aliyê Tevgera Îslamî ve hatin destbiserkirin û radestî rejîma Komara Îslamî hatin kirin. ji wan heft xebatkaran şeş kes bi navên Erşed Rezayî, Mihemedezîz qadirî, Yûnis Mihemedpûr, Ednan Îsmaîlî, Mizefer Kazimî û Merûf Suhrabî, ji aliyê rejîma xweînmij a Komara Îslamî ve hatin lisêdaredan. Ligel nûkirina soz û peymana bi rêbaza wan re, wê tawana Tevgera Îslamî mehkûm dikin û bêguman ew cinayet pêş çavên wijdana mirovahiyê veşartî namîne.

# NAWENDA BAZIRGANÎ A KOMARA ÎSLAMÎ LI HEWLÊRÊ HAT DAXISTIN




Birêvebiriya ewlehî a Herêma Kurdistanê roja duşemî, 18’ê Çiriya Pêşîn a 2010an, nawenda Bazirganî a Komara Îslamî a Îranê li Hewlêrê daxist û dawî bi çalakiyên wê nawendê anî. Birêvebiriya asayîşa Herêma Kurdistanê rojek pêştir 24 demjimêr dem jêre diyarî kiribû ku dawî bi karên xwe bîne, lê ji ber guhnedana berpirsan ew nawend hat daxistin. Hêjayî gotinê ye ku Komara Îslamî gelek car di zaf welatên cîhanê de bi navê bazirganî yan karê çandî ve hin nawendan dadimezrîne, lê karê sereke yê wan sîxurî, alozî û hevkariyên bi terorîstan e.

## Şandekî PDKÎ Serdana Deftera Siyasî Ya Partiya Zehmetkêş Ên Kurdistana Îraqê Kir



Bervar 10/10/2010’an, şandekî PDKÎ bi serperestiya Hesen Şerefî, Cîgirê Sekreterê giştî ê partiyê, serdana Deftera siyasî ya partiya Zehmetkêş ên kurdistana Îraqê kir û ji aliyê Belên Ebdula, Sekreterê wê partiyê ve hate pêşwazîkirin.

Rewşa siyasî a Îranê, guhertinên deverê û nêrînên her du aliyan derheq meseleyên siyasî ên deverê û ew kirîzên ku rejîma Komara Îslamî a Îranê di asta hundirî û derve de pêre berbirû ye, naveroka dîdara wan bû.

## Nûnerê PDKÎ Li Hewlêrê Serdana Ebu Tara, Endamê DS a Partiya Komonîst Kir



Tahir Mehmûdî, berpirsê peywendiyên PDKÎ li Hewlêrê, bi şandekê re serdana Ebu Tara, dostê kevnar ê PDKÎ û endamê Deftera Siyasî a Partiya Komonîst a Kurdistanê (Başûr) li bargeha vê partiyê de kir.

Şanda PDKÎ di vê serdanê de, rêz û pêzanên hizbê bo zehmet û mandîbûn û dostatiya çend salî a bi wî rêzdarî tevî PDKÎ nîşan da.

Ebu Tara jî bi kêfxweşî ve sipas ji şanda partiyê kir û kêfxweşiya xwe derheq serdana şanda PDKÎ nîşan da.

# Bersiva Serokê Partiya Kar A Brîtanyayê Bi Pîrozbahiya Sekreterê Giştî Ê PDKÎ



Mistefa Hicrî
Sekreterê Giştî ê PDKÎ
Mistefayê rêzdar

Gellek sipas ji bo nemeya te a pîrozbahiyê ku ji aliyê PDKÎ ve, derheq bi hilbijartina vê dawiyê a min wekî serokê partiya Kar a Birîtanya yê ku we şandibû.

Peywendiyên Partiya Kar a Birîtanyayê tevî partiyên deste xweşkên xwe, cem min pirr buhadar in. Wekî serokê Partiya Kar a Birîtanyayê ez pêşxistin û piştgirîkirin ji pêşdebirina peywendiyên navnetewî ên partiyê didomîn im ku bi bawera min roleke sereke dibîne li nûjenkirina Sosyal demokrasî û dûdeçûna bersivekî pêşkevtiyane bi wan pirsgirêkên ku berbirûyê me dibin.

Ez çavnihêriya karkirinê me tevî we li ser vê mijarê.

Bi hurmet ve:

**Rt Hon Ed Miliband MP**
**6'ê Çiriya Pêşîn a 2010 an a Zayînî**

---

# Daxuyaniya Deftera Siyasî a PDKÎ Derheq Koça Dawiya Mamosta Îsmaîl Umer Elî






Roja 18ê Çiriya Pêşîn a 2010'an, Serokê Partiya Yekîtiya Demokrat a Kurd li Sûriyê, mamosta Îsmaîl Umer Elî, bi sedema rawestana dil koça dawî kir.

Di vê derbarê de, Deftera Siyasî a PDKÎ behînameyek pêşkêşî rêberiya vê partiyê kir ku deqa vê behînamê ev e:

**Birêz birêveberiya Prtiya Yekîtiya Demokrat a Kurd li Sûriyê!**

Rêz û silav

Bi xem û kovanek mezin ve, mixabin me nûçeya koça dawiya mamosta Îsmaîl Umer Elî, Serokê partiya we ya xebatkar bihîst. Di vê derheqê de tevî derbirîna xem û nerihetiyên xwe bona jidest çûna wî xebatkarê mandînenas ku bêguman xesarekî mezin e bo tevgera kurd bi giştî û bi taybetî bo Partiya Demokrat a Kurd li Sûriyê, em behî û serxweşiya xwe arasteyî we birêzan û hemû endam û alîgirên we û dost û nasyar û malbata birêz ya xwedê jêrazî dikin û sebr û aramiyê ji tev aliyekê re dixwazin û xwe jî li vê xemê de bi şirîk û beşdar dizanin.

Cihê xwedê jêrazî buheşta berîn be

**Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**
**Deftera Siyasî**
**19.10.2010**

# Peyama Pîrozbahiya PDKÎ Bi Hinceta Lidarxistina Kongireya 4mîn a "HAK-PAR"ê







**Endamên rêzdar ên "HAK-PAR"ê:**

Tevî rêz û silavan

Gazî û deiweta we hevalên xoştevî bona beşdariya di kongireya 4mîn a partiya we gihîşe destê me. Emê pirr kêfxweş bibana ger pirsgirêkên kar û sefera Turkiyê, rê ji amadebûna me û dîtina we negirtiba. Bi vê sedemê em daxwaza lêbihorînê ji we dikin ku me nekarî em li wir amade bin. Lê em bi erkê xwe dizanin ku bi rêya vê daxuyaniyê, lidarxistina 4emîn kongireya we ji we pîroz bikin. Em hêvîdar in ku kongireya we kongireyeke pirr destkevt û pirr naverok be ku bibe sedema vê yekê hûn bigihîjin xwestekên xwe û rêberiya we jî ji bo pêşdeçûna partiyê, pêngavên micid bawêje.

Her wiha em dîsan li ser pêwendiyên dostane ên di navbera PDKÎ û "HAK-PAR"ê de tekez dikin û tekoşîn ji bo vê yekê pêdiviyeke girîng e.

Carek din em lidarxistina kongireya 4em a partiya we pîroz dikin.

**Partiya Demokrat a Kuridstana Îranê**
**Deftera Siyasî**
**12/10/2010 a Zayînî**

# Aboriya Îranê Jana Gestina Tehrîman Hîs Dike

**Amadekar: Dara Natiq**

Piştî derbasbûna Çar mehan li ser dorpêçên Şêwra Tenahiyê, kêmasî, sekinandina hinartina alavan û jordeçûna helawsan (tewerom)ê, gefê ji bazara aloz û tejî ji arîşe a Îranê dike.

Pêka gotina bazirgan û bazariyên Îranê çar mehan piştî pejirandina gera 4'mîn a dorpêçên Şêwra Tenahî a Saziya Netewên Yekbûyî, asta helawsan (tewerom) û jordeçûna bêkariyê gefê ji civaka welêt dixwe.

Ji aliyekî din ve giranbûna roj li rojê zêdetir a hewcehiyên jiyanê di bazarên Îranê de gefan ji jiyana xelkê sivîl yê wî welatî dike û li gora rapora Banka Nawendî a Îranê rewşa han bi berhevdan tevî 3 salên derbasbûyî de bi awayekî bêmînak zêde kiriye û ew çende bûye cihê nigeranî û bêhêvîbûna hemû civaka Îranê.

Lê ya ku ji hemî aliyekî re rohn û eşkere ye, pejrandina dewra çaran a dorpêçan li ser Îranê, bi merema sekinandina pirograma Etomî a Îranê û neçar kirina karbidestên Îranê di pêxema parastin û berçavgirtina urf û yasayên navnetewî de hatiyê gelale kirin û darêtin. Ew piroseya ku rayedarên Îranê herdem dibêjin ku ji bo meremên aştîxwazane bikar tînin û raya giştî jî dibêje ku ew rast nabêjin û mebesta wan çêkirina çekên navikî ye. Li ser bingeha wan dorpêçan, hinartina alav û berheman bo Îranê hatiye qedexekirin û hin welatên diyar ên cîhanê jî pêwendiyên xwe bi Îranê re qut kirine.

Kêmbûna potansiyela kar û mangirtina kedkaran di kargeh û kompaniyên Îranê de didomin. Xwediyê yek ji kompaniyên berhemanîna dermanan di Îranê de, di çend rojên derbasbûyî de neçar bûye ku bi hegera zext û givaşên aborî qasî 40 ji sedêye kedkarên xwe derbixe. Herweha li gor rapora nûçegihaniya kar a Îranê, du kompaniyên tekere çêkirinê û yek ji kompaniyên berhemanîna rûnê xwarinê ku ji kompaniyên fermî yên hikûmetê ne, heyamê çar heyvan e ku kedkarên wan miaş û heqdestê xwe wernegirtine.

Hin pispor û şarezayên Îranê ku heyamê çendîn salan berpirs û rayedarên fermî yên wî welatî bûne, dibêjin ku kirîza aborî a nihoyî di Îranê de, encama rasterast a wan dorpêçan û teslîm nebûna rayedarên Îranê bi yasa û rêsayên navnetewî re ye. Lê ya ku karbidest û serokên wî welatî dibêjin ku ew dorpêç nikarin tu bandorekê bixin ser aboriya wî welatî, xwe lêbandin e û hewce ye ku ew wê rastiya han bizanbin û qedera gelên Îranê nekene qurbaniyê nefamî û nezanî û xeyalên biyom yên xwe.

Lê vê gavê zûye ku mirov bibêje helwest û dorpêçên navneteweyî vê çi bandorekê bikin ser Îranê. Ji berku Îran xwediyê heyî û dahateke zaf e ku li hember şokên cîhanî û kirîzên aborî de berevaniyê ji xwe dike. Mehmûd Ehmedînijad di sefera xwe a dawiyê bo Niyoyorkê ji nûçgehanan re got ku: Aboriya Îranê salim e. Navbirî herwisan ragihand ku dorpêç û zext û givaşên zêdetir, Îranê ber bi îrade û piştrastbûnek zêdetir bi xwe re dibe.

Lê gavek din cuda ji tehrîma petrolê ku kariye hem bibe zextek micid û hem jî bandorek bilez bixe ser Îranê, ew jî tehrîma Benzînê ye ku ji aliyê Amrîka û bi dijî Îranê hatiye pejrandin û bûye sedema ji karxistina şirketên petroşîmî û neftî yên wî welatî. Efşîn Nûrşahî birêveberê yek ji kompaniyên berhemanîna rengê senetî li Tehranê dibêje ku di wan çend hefteyên dawiyê de kirrîna her cure alavên destpêkî yên petroşîmiyê gelek dijwar bûye. Navbirî ragihand ku heke rewşa han herweha bidome, em nikarin çend heyvên din zêdetir karê xwe bidomînin.

Îsa Xerîbî kolbî' ku yek ji aliyên got û bêjên navbera sedan berhemhênerên dewletî de ye, dibêje: hezîne û têçûya alavan bi qasekî ecêbgirtî jorde çûye ku renge di çend heyvên tê de nirxa qabikên avê bi awayekî berbiçav zêde bibe. Bihaya pereyê "Riyal" ên Îranê bi awayekî çavnihêrnekirî daketiye ku di çend salên borî de bêmînak bûy. Ew bûyera han bû sedemê wê çendê ku di çend hefteyên borî de derxistina Dolar û Euro bihê sekinandin û serafî jî dest ji karê xwe bikişînin. Daketina buhayê Riyal gihiştiye 22 ji sedê û xwediyê yek ji serafiyên Tehranê dibêje ku riyên veguhestina pere bo hundir û derveyî welêt bi tundî hatine daxistin û cemidandin.

Di demekê de ku hemû arîşeyên sereke yên aboriya welêt vedigere ser dorpêçên navneteweyî, lê hikûmet bi xwe rolek sereke di siyaseta aboriya welêt de dilîze û haşayê ji rastiyên heyî dike. Ehmedînijad jî ewa heyî xercê bername û pîlanên xwe yên popolîstî û çewaşekarane dike.



Sindoqa navnetewî a Pere dide texmîn kirin ku aboriya Îranê di sala borî de %16 geşe kiriye. Di sala 2009'an de %1,1û sala 2008'an qasê yek ji sedê û sala 2007'an jî %7,8 geşe kiriye. Herwisan karbidestên Îranê dixwastin ku bi jordebirina asta buhaya maliyata zêrfiroşan û hin alavên din, wekheviyekê di bûdceya hikûmetê de pêk bînin ku bûye sedema mangirtin û nerazîbûna zêrfiroşên Tehranê û 12 bajarên din yên Îranê. Yek ji bazerganên Tehranê dibêje ku helawsan (tewerom) bi xwe bandorek nigetîv kiriye ser jiyana xelkê û bi sedema karê me yê rojane tevî wî xelkî em wan derk dikin ku tevî arîşe û girêpêçkên zaf yên jiyanê berbirû ne.

Ji aliykî din ve hikûmeta Îranê dibêje ku nirxa helawsanê (tewerom)ê di du salên borî de ji %25 gehandine %10' an. Lê li gor vekolîn û hişdariyên niha di encama sekinandina 'sobsîdan' de astê helewsanê di welêt de bighîje qasî zêdetir ji 30 ji sed'. Herwisan hin ji şarezayên warê abûrî dibêjin ku astê helawsana niha ya Îranê 25 ji sedê ye.

Lê alozbûn roj li pey rojê zêdetir a aboriya Îranê û guhnedana karbidestên wî welatî bi xwast û daxwaziyên navneteweyî û berdewambûna zêdetir a dorpêçan ji aliyê civaka navneteweyî ve, xesarek mezin ji bingeha aboriya wî welatî dide û jiyan û qedera xelkê Îranê ber bi rewşek nediyar ve dibe û bûye cihê nigeraniya tev aliyekî. Nemaze parek ji berpirsên fermî yên welêt û yek ji wan Refsencanî heya niha derheq bandor û encamên dorpêçên navneteweyî li ser aboriya welêt hişdarî dane. Navbirî di civîna Şêwra Nobedar de ragihand ku: Ez daxwazê ji we hemûyan dikim ku pirsa dorpêçan bi micid werbigrin û jiberku ewa ne henek e û nabe em bi kêm bizanin.

**Çavkanî: Wall Street Jornal**

# Xaminyeyî li Qumê, li pey wergiritina pileya "Îmam" de sergerdan e!



Şehab Xalidî

Piştî amadekariyeke zor bo çûna Xamineyî, rêberê nîzama Îranê bo bajarê Qumê, navbirî roja sêşemiyê di nav rewşeke pirr tund a ewlekariyê de gihîşte wî bajarî. Li gor hinek çavkaniyan navbirî hertim serdana Qumê bi awayekî ne fermî kiriye, lê eva sêyemîn serdana navbirî bo wî bajarî ye bi awayêke fermî.

Navbirî di axavtina xwe ya bajarê Qumê de got: " Welatê me dijberî mîkrobên siyasî û civakî hate waksîne kirin". Merema navbirî ji mîkrobên siyasî neyarên rejîmê û kesên azadîxwaz bû, ên ku seba eşkerekirina bîr û raya xwe hatine girtin û li jêr îşkenceyên herî tund û hovane de canê xwe ji dest dan. Lê em jî dikarin bêjin rast e welat bi dijî mîkroban hate waksînekirin, bi vê wateyê ku xelkê Îranê naveroka rastîn a Xamineyî, Ehmedî Nejad, Taib, Radan , Ehmedî Muqedem, Mehsulî, Larîcanî û ... nas kirin, û li hemberî wan de xwe waksîne kirin, çimku ya ku Xamineyî û peyrewên wan tîne serê vî xelkê belengaze welat, hinde dûr ji îslamiyet, yasa û mirovayetiyê ye ku mirov nikare bi tu awayekî bîne ziman.

Navbirî got: " yên ku di roja Aşûrayê de dest bi nerazîbûnê kirin, ji aliyê bîhaniyan ve hatibûne handan". Ew axavtina di wan çend salan de hinde hatiye gotin ku bawer nakim heta di nav peyrewên wî bixwe de jî guheke bihîstinê hebe. Gelo rastî ew hemû kesên têne ser şeqaman, girêdayî bi bîhaniyan in? Hekî praniya xelkê welat bo bihaniyan karê sîxoriyê dikin, gelo hûn çima dixwazin xizmeta vî xelkî bikin? Xamineyî bê şik û guman ji her kesî baştir dizane ku ew kesên nerazî xelkê welat ê asayî bûn û ji mafê xwe ê rewa zêdetir tu tiştek nedixwastin. Wan daxwaza dadperwriyê dikirin, lê me dît ku bi awayekî gellek hovane bû bi gulleyan bersîva meşvanan dan. Xaminyî bi xwe baş dizane ku li serdemê rejîma Paşayetiyê, di roja Aşûrayê de bi bêy tu astengiyekî wan dijberî rejîma paşayetiyê dest bi meşeke nerazîbûnê kirin, lê çekdarên rejîma Paşayetiyê ku bi qewlê Xamineyî dijberî bihagiraniyên îslamî bûn, bo hurmetgirtina ji roja Aşûrayê tund û tîjî bi kar neanîn. Lê serbazên îmamê zeman û peyrewên Xamineyiyê misilman! bi tirumîbîlê bi ser laşê ciwanên bê tawan û azadîxwaz re derbas bûn.

Xamineyî herweha got ku peyrewên buhagiraniyên îslamî, ji caran zortir bûne. Xamineyî nabêje di civakekê de ku hinde bi navê îslamê xelkê îşkence dikin, û di girtîgehan de, destdirêjiyê dikine ser keç û kurên bê tawan ê welat, û piştî kuştina wan termê wan jî nadne malbatên wan û bi awayekî nihênî vedişêrin, xelkê çawan ji vê îslama ku ew şev û rojan basê jê dikin, bêzar nabin û jê dûr nakevin. Hêzên rejîma Paşayetiyê di luleya çekên wan de gulên sor hebûn, lê peyrewên Xamineyî bi biryara wî bixwe li ser şeqaman singê keç û kurên welat bi gulleyên jehrî kun-kunî kirin. Niha berevajiyê axavtina wî, bêdadî, dizî, îtiyad, xwefiroşî û gendellî gihîştiye ew qasê xwe û xelk daxwaza wan azadî û demokrasî ye. Xelk naxwazin ku Weliyê Feqîh ji vê hindê zêdetir bi navê îslametiyê jiyanê ji wan tall biket.

Rêberê Nîzama Îslamiya Îranê herweha qala beşdariya 40 milyonî a xelkê di hilbijartina sala borî de kir û got ku ew beşdariya bi wateya beşdariya li referandomake netewî de bû ku xelkê welat bi vî awayî emegdarî û hitbara xwe bi nîzama Îslamiya Îranê re nîşan dan. Pirsa me ji Xamineyî ew e ku gelo hekî we hinde bawerî bi xwe heye çima hûn amade nînin ku referandomeke tewaw azad û demokratîk bi navbeynkariya NY rêve bibin, daku rastiya vê pirsê bo hemû aliyekê eşkere be? Gelo hekî 40 milyonî emegdariya xwe bi nîzama we daye xuyanîkirin, bes hûn nabêjin piştî hilbijartina serkomariyê ew meşa ku pitir ji milyon kesî tenê di Tehranê de, têde beşdarî kirin, ew çi meşek bû? Ma wan hemiyan nedigot ku me dengê xwe nedaye Ehmedînijad û em wî wek serkomarê xwe, qebûl nakin?

**Armancên vê serdanê**

Bajarê Qum yek ji wan binkeyên merceên Şîî û hewzeyên îlmiye ên Şîîyan e, û serdana Xamineyî bo vê nawendê û şêweya berbirûbûna merceên di vî bajarî de, tevî Xamineyî di demekê de ku navbirî xwe wek rêberê Misilmanên cîhanê dihesibîne, dikare wate û çemkên berfirehtir ji serdanek asayî hebe.

Mihemed Cewad Ekberî, lêkolînvanê pirsên olî, bi vî awayî bas ji armancên Xamineyî di warê serdana bajarê Qumê de dike: "ji aliyekê ve rêberê rejîma Îranê bo ragirtina rewatiya xwe hewcedarê serdana Qumê û hevdîtina tevî Merceên Teqlîd e, ew rêberê ku di warê siyasî de pirr tê rexne kirin, û di warê civakî de xwediyê pêgahek wiha nîne. Bi taybetî piştî bûyerên hilbijartina serkomariyê her kes bi başî hest bi vê rastiyê dike.

Li gorî gotina navbirî, rêberê nîzamê rewatiya xwe a civakî û siyasî ji dest daye, tenê aliyê ku dikare pê pişt qahîm be, aliyê olî ye, lewra divêt ew aliyê kêm li bajarê Qumê, di nav kesayetiyên olî de bê hezkirin û qebûlkirin jî, ew divêt nîşan bide ku hêla jî wî li binkeya sereke a îslamê -bi raya wan- ku Hewzeya Îlmiya a Qumê ye, cî pêyekî qahîm heye".

Sêracedîn mîrdamadî, şîrovekarê pirsên siyasî ên Îranê jî tevî îşarekirina bi bûyerên piştî hilbijartinê, giringiya vê serdanê girê dide bi wan bûyeran û dibêje: "yek ji wan binkeyên pirr girîng ji bo Nîzama Komara Îslamî a Îranê, ku piştî hilbijartinê derbe xwariye û valatiyekî kûr di navbera vê binkeyê û rêberiya nîzamê de pêk aniye, texa ruhaniyet û merceên olî li Hewzeyên Îlmiye de ye, ku tê gotin Xamineyî bona vejandina vê pêwendiya veqetiyayî û lawazbûyî serdana Qumê dike. Bi taybetî eva ku merceên Qumê bi sê beşên hikûmetî wek Mekarim û Nûriyê Hemedanî, û merceên sunnetî ên ne hikûmetî wek Wehîd û Şebîriyê Safî û merceên rexnegir hatine parvekirin, û du beş ji wan sê beşan tevî hikûmetê nînin û ew yek bi zelalî diyar e".

Derheq vê serdanê hinek deng û bas jî hene ku dibêjin jiber vê ku heya niha Xamineyî tu "Risaleyek" bilav nekiriye, hewlê dide bi wan serdan û gotûbêjan, rê ji bo gihîştina xwe bi astê Merceiyetê xweş biket, herweha cehdê diket ku ji riya wan mercean ve bigîje asta wergirtina pileya "Îmametiyê" û bibe Îmam Xamineyî!.

Em bawerin ku ew serdana Xamineyî jî nikare ji aliyê propagendeyî zêdetir tu deskevtek weha berçav bi dû xwe re hebe. Jiber ku zimanê hikûmetê hertim zimanê zorê û gefan bûye, nek zimaneke nerm ku bikare her kesî bi qenaetê bigehîne, lewra em dizanin ku zimanê gefê aliyê kêm li hemberî Merceên Teqlîd û Ruhaniyên paye bilind, nikare kêrhatî be û nikare bandora xwe jî hebe, renge tenê bikare wan bê deng bike, lê bê şik nikare wan naçar bi peyrewîkirina ji xwe bike.



## RONÎ

## Quncikek ji bo şiroveya bûyer û babetan ji xwendevanên "Agirî" re

**Ebdulla Hicab**



# Ehmedî Nijad li cem hevalên xwe yên mîlîtan

Gera Mehmûd Ehmedî Nijad ya Lubnanê, beriya ku weke serdana serok an şandek bilind ya welatek ji bo welatê din bê temaşe kirin, pêwîste weke serdana serkirdeyek leşkerî bo şervanên xwe bê dîtin. Ehmedî Nijad bi serdana xwe ya Başûrê Lubnanê, axaftinên xwe, pêwendiyên bi Hizbullah re û bi giştî bi dan û standinên bi dost û alîgirên rêjîma Komara Islamî re nîşan da ku ya ji bo wî giring nebe berjewendiyên gelên Iranê û Lubnanê û pêwendiyên di navbera du welatan de ye. Giringtirîn mijar di rojeva Ehmedî Nijad de ewe ku bi çi awayî li navxwe û derveyî Iranê eniya tundajo û dijber bi aştî û ewlekariya herêmê re li ser piyan bihêle û bi wê riyê ve pêşiya guhertinên siyasî ku rê ji dîktatoran re teng dike bigre.

Komara Îslamî ji destpêka jiyana xwe li sala 1979 ve hewl daye ku netifaqiyên navxwe ye Lûbaniyan xurt bike û beşek ji civaka Lubnanê ku di warê olî de şîe ye bixe xizmeta pêşve birina pilan û projeyên xwe yê zêdexwaz. Di wê çarçoveyê de her ji destpêka salên 1980 ve rêkxistina Hizbullah damezirand û bi dirav û çekên xwe, ew rêkxistin li hember grûpên dine Lubnanî bilind kir. Piştre bi alîkariya Sûriyê, eniyek nû pêk anî ku her çawa be, rê nede gelên Lubnan li ser bingeha berjewendiyên xwe bi cîranên xwe û bi taybet Israîlê re ji bo aştiyek berdewam bikevin dialiogê. Sûriye ji bo ku Lubnaniyan di kêşeya girên Golan de bi xwe re bike hevdeng, Îran ji bo ku Hizbullah û Lubnaniyan bixe xizmeta îdeolojiya xwe ya zêdexwaz û ciyê pê xwe di navçeyê de xurt bike destê xwe xistin nava karên hundire Lubnanê û ev bû 30 sal ku nahêlin civaka Lubnanê rûyê aştî, tenahî û ewlekariyê bi xwe ve bibîne.

Serdana Ehmedî Nijad bo herêmên bin deselata Hizbullahê bi eşkere derxist ku mebesta wî û rêjîma wî bi tenê xurt kirina Hizbullah, ew jî ji bo pêşve birina stratêjiya Komara Îslamî di navçeyê de bû. Ji ber ku pêkhateyên din yên civaka Lubnan û bi taybet beşa sûnne û mesîhî ne di rojeva Ehmedî Nijad de bûn û ne jî bi wê serdanê dilxweş bûn. Çûnko ji bo wan, ewlekariya neteweyî, bi hev re girêdana civaka Lubnanê, paşve dana karîgeriya dewletên bîhanî bi ser firaksonên siyasiye welat û ji hemûyan giringtir aştiya bi Îsraîlê re di rojevê de ye. Gera Ehmedî Nijad ji tu yek ji wan mijaran re alîkar nebû, berevajî li ser her yek ji wan mijaran karîgeriay neyînî hebû.

Lubnan welatek bi îmkan, lê di astengiyan de ye. Pêkhateya welat ji warê qewmî û olî ve gelek rengîn e. Ji 4,1 miliyon rûniştvanên welat, mesîhiyên katolîke maronî hê piranî ne, pişt re bisilmanên sûnne, bisilmanên şîe, mesîhiyên ûrtodûks, drûzî, katolîkên yûnan, ermeniyên Urtodoks, elewî, ermeniyên katolîk û protestan tên. Lê weke tê gotin piraniya Lubnaniyan li derveyî Lûbanê dijîn. Ji nêzîk 13 miliyon Lubnaniyên derveyî welatê xwe, pitir ji 7 miliyon kesan li Brazîlê dimînin û ewên din ji Amerîka Latîn, DYA, Canada û Austaliya ve bigre heya Ewrûpa li her derî belav bûne. Ew pêkhate rewşa siyasiye welat jî dixe bin bandora xwe û destê welatên cuda ji bo destverdana karê hûndire Lubnanê vedike.

Karîgeriya dewletên Sûriye û Îran ji aliyekê ve, Erebistan û Misr ji aliyek din ve û zexta ji aliyê Îsraîlê, rewşa Filistînê û mijara penaberan bi hev re bi salane ku li ser civak û siyaseta Lubnanê giraniyê dikin. Bandora Sûriyê ji sala 1976 dema mîlîşiyayên Falanjîst (Phalanges) yên mesîhiye maronî bi serokatiya Beşîr Cumeyil kampên penaberên Filistînî dorpêç kirin li ser Lubnanê xurt bû. Wê demê Sûriyê ji bo piştgiriya Filistîniyan bike hêzek leşkerî şande Lubnanê. Di heman salê de Mesîhiyên Maroniye Lubnanê jî daxwaziya alîkariyê ji Sûriyê kirin. Sala 1977 dema serokê komela Drûziyên Lubnan, Kemal Cûmbelat hate terror kirin, Drûziyan ji bo tolhildanê êrişî ser mesîhiyan kirin. Rewşa aloz û şerê navxweyî di navbera grûpên cuda ye qewmî, olî û siyasiye welat de, Lubnan ber bi ji hev belavbûnê ve bir. Piştî ku Komara Îslamî li Îranê hate ser kar, wê carê Xumeynî û hevîdeolojiyên wî jî bandor li ser şîeyên Lubnanê kir û bi wî awayî her yek ji komelên şîe, sunne, mesîhî û dirûzî bi hêza leşkerî herêmên xwe kontrol kirin û ji kî re hilketa, dixwest aliyê din bişkîne. Sala 1982, di germiya şerê navxweye Lubnanê de artêşa Îsraîlê jî êrişî ser welat kir û heya ser kampên Rêkxistina Rizgarîder a FIlistîn li Beyrûtê çû pêş. Dema mesîhiyên maronî piştgiriya artêşa Îsraîl kirin û bi wan re ketin hevpemaniyê, di piratîkê de mesîhî bûn 2 eniyên ji hev cuda. Navbera Drûziyan, bisilmanên şîe ku li bin ala rêkxistina Emel û piştre jî Hizbullah kom bubûn û bisilmanên sûnne jî aloz bû. Bi kiryar tu grûpek amade nebû bi ya din re hevkariyê bike, bikeve nava hevpemaniya siyasî an ji xwe baweriyê bi aliyek din bike.

Şerê navxweyî heya sala 1990 berdewam bû. Ew şer ku di serî de bi hêceta hebûna hêzen çekdare Filistînî li Lubnanê destpê kiribû piştre ji kontorla hemû aliyan çû der. Di wê navê de Sûriyê serdestiya xwe ya siyasî li Lubnanê parast û rewşa siyasiye Lubnanê bi siyaseta xwe ve girê da. Lê Îran jî hem bi riya Sûriyê ve û hem jî dema ciyê pê xwe di nava Hizbullah û şîeyên Lubnanê de şidand bi awayê serbixwe rojeva siyasiye Lubnanê bi berjewendiyên xwe ve girê da.

Li aliyek din dema Erebistana Seûdî karîgerî û îmkanên xwe yên abûrî ji bo gûherîna rewşa Lûbananê xiste kar, Îran û Sûriyê ji wê hewlê hez nekirin. Lewma siyasetvan û grûpên bi Seûdî re hevpeyman ji aliyê Îran û Sûriyê ve hatin piştguhxistin. Netifaqî gîha astekê ku Îran û Sûriye bi riya Hizbullah û hêzên girêdayî Sûriyê ve bi grûpên sunne yên Lûbaninî re bi kiryar hatin himberanî hev. Di wê navê de, sala 2005 serokwezîrê pêşîne Lubnan û kesayetiyê xwedî bandor li welat, Refîq Herîrî bi bombeyekê hate kuştin. Der hal tiliya gumanê dirêjî Hizbullah ya girêdayî bi Îranê û Sûriyê bû, ji ber ku Herîrî bi tundî hewil dida ku hêzên Sûrî ji Lubnanê derxe, mîlîsên Hizbullah ji îmkanên leşkerî bêpar bike û îstiqrarek siyasî bîne Lubnanê. Ew yek bibû heger ku ji bo demek dirêj Hizbullah/Îran, Sûriye û Herîrî li himberanî hev bisekinin.

Veşartî nîne ku amanca Ehmedî Nijad ji wê serdanê, bi wê rewşê ve girêdaiye. Lewma xurtkirina pêwendiyên navbera dû welatên Îran û Lubnan ne di rojevê de nebû. Ji ber ku Komara Îslamî her ji roja yekê ve ne li ser bingeha hurmeta dualî bi Lubnanê re, lê li ser bingeha hevpeymanî bi beşek ji civaka şîe ya Lubnan re ku bi riya Hizbullah ve girêdaiyê Îranê ye li Lubnanê kar dike. Armancên sereke yên gera wê dawiyê ya Ehmedî Nijad bo Lubnanê bi kinayî bi wî awayî dikarin werin bi rêz kirin:

Li navxweye Îranê ji reqîbên xwe yên siyasî re nîşan bide ku giraniya wî di nava alîgir û hevalbendên îdeolojîke Komara Îslamî li cîhanê xurt e û lewma xwe mafdar dizane ku rexne û dijberiyên hundirî welat bê bersiv bihêle û eger bi pêwîst zanî bi xurtî wan tevbişkîne

Ji reqîbên xwe yên navneteweyî û bi taybet Îsraîl û Amerîka re nîşan bide ku eger wî û rêjîma wî weke ku heye an weke ku bi xwe dixwaze nepejirînin, wî derfet heye ku bi riya piştevanî û alîgirên xwe ve nehêle aştî û aramî bikeve heremê

Îsraîl û Amerîkayê şiyar bike ku eger hizra hindê bikin ku bi riya leşkerî ve zextê bidin Îranê, ew jî dikare hevpeymaniya xwe ya bi Hizbullah re bi awayek çalak li dijî Îsraîl bi kar bîne

Li navxweye Lubnanê rê ji eşkerebûna encamên pêvajoya doza kuştina Refîq Herîrî bigre û rê nede ku pêwendiyên rengeiye Hizbullah bi wê kuştinê re derkeve holê. Di heman demê de piştigiryê bide xebata Hizbullah li dijî siyaseta Tevgera Pêşerojê "Elmûsteqbel" ku Seid Herîrî serokwezîrê niha piştî kuştina babê xwe ava kir û bi awayekê li hember karîgeirya siyasiye Îran û Sûriye li Lubnanê disekine.

Û di dawiyê de jî pêvajoya aştiya Filistîn û Îsraîlê ku hêviyek heye bi awayek cidî bikeve rojevê, dubare bixitimîne.

Rojev

# Nifûza Îranê li Îraqê de

**W: Arîn**

Yek ji siyasetvanên Îraqî li civînek taybetî li Waşîngtonê de gotiye ku: Îrorojê Îraq ji bo Îranê ew tişt e ku Lubnan ji bo Sûriyê bû" ew hest li nav Îraqiyan, hevalbendên ereb yên Amerîka û gelek ji dîplomatên Amerîkayî û leşkirên Amerîka hevbeş e. Eva ku Amerîka yek ji serhişktirîn dujminên Îranê - hikûmeta Sedam Husên- ji holê rakir û îzin bi Îranê da ku bibe bi hêza herî binifûz a derveyî hikûmeta Îraqê.



Lê gelo eva dê bibe lîstikek serkeftî ji bo Îranê? Her terze nirxandinek li ser nifûza Îranê li Îraqê de divêt ji riya pêdeçûna bi ser armanc û berjewendiyên Îranê li welatê cîran û dujminê dîrokî yê wê be. Serbarê vana, Îran li pey pêşgîrî ji nûjenkirina arteşa Îraqê weke gefek yan weke qada destpêka êrîşa Amerîka bi Îranê de ye.

Îranê aliyê kêm li dehsala borî de bi hiloşîna Sedam Husên û jinavçûna dezgehên sîxorî yên Beis'ê û xurtbûna beşdariya neyarên leşkirî li birêveberiya Îraqa piştî Seddam de, bi beşek ji wan armancan gihiştiye.

Bi stûgirtin yan piştewanî ji her terze êrîşekê li ser Îranê ji bo siyasetvanên Îraqî ku li sê dehsalên borî de hikûmeta Beis li Îraqê de hewcehî bi piştewanî û piştgiriya Îranê hebûn û bi Îranê re armancek hevbeş li dijî arteşa Îraqê dişopandin, ji wan re dijwar e. Eve sedemek e ku çima Îran ji hevalbendên xwe li hewildanên wan de bo jinavbirina hikûmeta Beis de piştevanî dike û eva ku çima tercîh didin ku hikûmetek niştimanî a nû li Îraqê de pêk were.

Piştevanên Îranê li Îraqê de li pey wê yekê ne ku armancên rêketinnameya Îraq û Amerîkayê aloz û tevlihev bikin û alîkariya Amerîka bi hêzên ewlekarî yên Îraqê bisînor bikin. Heta ku girûpên leşkirî yên Îranê li Îraqê (Sipaha Quds, girêdayî bi Sipaha Pasdaran) ku berpirsatiya operasiyonên leşkirî yên Îranê li derveyî wî welatî de ne, şiyanên xwe li biarmanc girtina leşkirên Amerîka, dîplomat û şaromendên Îraqê de biparêzin û li heman dem de ev girûp dikare li dijî êrîşa leşkirî ya Amerîka yan Îsraîlê hevkariya Îranê bike ku bi vê çendê jî eve dibe bi qapûsek mezin ji bo fermanderên Amerîkayî û dîplomatan li Îraqê de dibe.

Îranê li aboriya Îraqê de, bazerganiyek biewle û yeksan û hevterîb pêk aniye û hevkariyên aborî ku bi qazancê Îranê ye û wê ji êrîşa ji nişkîveyî yan tehrîm û baykotan diparêze. Îran ji hêla "aboriya tewaw dewletî" ku bûye sedem seneta dewletî û girêdayî bi sipahê ji hemû îmkanatên dewletî mifahê bistîne, qazancê dike. Ji sala 2003'an ve dewleta Îranê deverên rojhilata Îraqê hay dide ku li ser berhemên neftî yên malê weke gazê, şewat ji bo germkirina malê û şewata otombîlan hesabê bike û Îran jî ji sîstema elektirîk a Îraqê piştewaniyê bike. Li pêşerojê de renge Îraq ji Îranê re gazê hawirde bike, li halekê de ku renge Îran pêşniyaz bike ku şiyan û karîna hinartina nefta Îraqê ji riya "bender û lengergeh"ên Îranê re zêde bike û egera sekinîna hinartina Îraqê li deverên başûrî de nemîne.

Îran hin caran serdestiya xwe li vê derheqê de nîşan dide û şewat û elektirîkê li zivistan û hawînê de, demên ku Îraqiyan hewcehiyek pir zêde pêre hene, nîşan dide. Vê bûyerê ev nîgeranî pêk aniye ku Îran dikare li ser hinartina nefta Îraqê li pêşerojê de xemsariyê bike, bi taybet ger bixwaze derheq riftarên civaka navnetewî nerazîbûna xwe nîşan bide yan ger bixwaze şiyan û karînên Îraqê li cihgîrkirina ciyê berhem û alavên Îranî li bazara cîhanê de sînordar bike.

Cudahî û nebûna hevalbeniya siyasetvanên Îraqê îzin bi Îranê daye ku sermiyandayîn, piştewaniya ragihandinî, navbeynkariya siyasî û herweha piştewanî ji mîlîtanan li pawana xwe de bigre. Piştewanên Îranê berdewam nîşan didin ku li qazanc û berjewendiya Îraqê de nine, bi taybet li Meclîsa Eilaya Îslamî a Îraqê, bizavek ku dengderên Îraqî ji ber pêwendiya wan bi Îranê re jê xwe diparêz in û niha wusa dixuye ku ew pêwendî bi piştewaniya ji Malikî tûşî şikestê bûye. Destdirêjiya li ser sînorên Îraqê, piştewanî ji hêzên mîlîtan û guherandina arasteya rûbarên Îraqê, bûye sedema rexne û lomeyên Îraqiyan ji her netewe û mesebekê. Renge Îran bi pêşerojekê re berbirû be ku nasyonalîzma Îraqî weke hêzekê geşe bike û ew eger jî bi nemana siyasetvanên Îraqî ku piştewaniyê ji Îranê dikin, hevdem be. Hemû evana nîşan dide ku Îran, weke Amerîka, divêt bi nifûza xwe li Îraqê de bi salan û dehsalan dirêjî bide.

**Gardiyen**

## Îran di rêzbenda azadiya çapemeniyê 3 pileyên din daket

Saziya nûçegihaniya bêsînor ku di sala 2002an heya niha ragihandina xwe di warê rewşa azadiya çapemeniyê di seranserê cîhanê de, salane belav dike û wê carê jî rêzbendek ji welatan di wî warî de amade kirine ku di wê rêzbendê de Îran 3 pileyên din jî daket û di nav 178 welatan de, di pileya 175 di beriya Turkmenistanê, Kureya Bakûr û Erîtrê de ye.

Ewa di halekê de ye ku di rêzbenda sala 2009 an a wê saziyê ku di warê azadiya çapemeniyê de çalakiyê dike, Îran di nav 175 welatan de, di pileya 172 an de bû.



Ragihandina han amaje dike ku tepeserkirina rojnamevan û şaromendên Enternêtî di Îranê de ku bi gotina wê saziyê piştî hilbijartina Serokkomariyê di Îrabê de destpê kiriye, di sala 2010 an di bi awayek xurttir dom dike.

Di rêzbendên salane ên wê saziyê de tenê di sala 2002an de di rêza wan welatan de bû ku pirsgirêkên berbiçav di warê azadiya çapeneniyê de hebûne. Piştî wê salê heya niha hertim di pileyên dawiya wê rêzbendê bûye û ji wan welatan bûye ku di warê azadiya çapemeniyê de rewşek pirr xerab hebûne.

Di wê ragihandinê de hatiye di Rojhilata Navîn de welatên Îsraîl, Îraq û Felestîn di warê azadiya çapemeniyê de pêşde çûne û ji wan pêtrîn pêşkevtin a Îsraîlê bûye bi jordeçûna 18 pileyan.

Di sala derbazbûyî de welatê Danmarkê di pileya yekimîn de bû û Fînland dûyem, lê îsal Fînland bû yekim û Danmark jî bi daketina 10 pileyan di pileya 11 ê de ye.

# Êzidî; Kurdên Herî Resen in



**Konê Reş**
**Qamişlo, 13.10.2010**

Êzidî; Kurdên herî kevnar in.. Ola wan ji olên herî kevnar e di dinyayê de, olek çiyayî ye. Ev ol li ser bingehê bûyerên xweristî hatiye ava kirin û kok û rehên xwe ji bîr û baweriyên xelkên herî kevnar wek Hindiyan, Hindoewropiyan û xelkên Mezopotamiya distîne. Hem jî gelek bîr û baweriyên şaristaniyên kevin wek Someriyan, Babiliyan Aşûriyan û Mîdiyan bi xwe ve girtiye û hilaniye.. Erê ola kurdên Êzidî oleke çiyayî ye, oleke şuristî ye, oleke aşitîxwazane ye.

Ta roja îro Kurdên Êzidî bi ziman, urf û adetên xwe kurdewariyeke herî resen dimeşînin; nimêj, îbadet û duayên wan bi zimanê kurdî ne. Di baweriya min de ta ku ola wan a Êzidiyetiyê hebe, wê zimanê kurdî hebe.. Parastina vê olê, parastina zimanê Kurdî ye.

Di nav çerx û deweranên salan de dijminên me ji çarhawêr ve şerê zimanê me kirine û dikin û wek ku diyare ziman nasnameya me a netewî diparêze, vêca ez wek nivîskarekî kurd parastina vê ola kurdan a kevnar ji parastina gelê kurd û zimanê wî dibînim. Ango parastina gelê kurd yên ku bi ola xwe Êzidî ne, parastina zimanê Kurdî ye. Ji ber ku ziman bingeha hebûna gelan e û azadkirina ziman, bi azadkirina welat ve girêdayî ye..

Roja îro, di navbera gelan û olan de cudahî û berberî hin bi hin kêm dibe.. Diyare ku ew jî ji ber zanîn, giyanê birayetiyê û wekheviyê ye. Pêwîste em baş bi qedir, qîmet û bihayê vê pêşveçûnê zanibin, xebat û bizavê di ber pêşxistina civata xwe de bikin, da ku em serbilind û serfiraz di şaristaniyek pêşketî de bijîn. Nexasim di vî heyamî de ku civata mirovahiyê bi lez û bez ber bi şaristaniyê ve diçe.. Bayê azadî, demokrasî û mafê mirovan li seranserî cîhanê belav dibe..

Û wiha baweriya me pir mezine bi gelê me yê Êzidî ku di roja 24ê Octoberê de, di roja serjimêriya giştî de li Îraqa Federal, dengê xwe bidin xwe.. Bidin reseniya xwe.. Bidin Laleşa Nûranî.. Bidin Şingala xwe.. Şingala Şewitî, Şingala berxwedanê, Şingala ku 72 ferman bi serê wê de hatine.. Şingala ku keleha xwîniya bû û îro cihê hunermend, stranbêjan û kaniya folklorê kurdî ye.

Pêwîste îro em mikur bên, ku em kurdên misilman ji gelek rexan ve deyndarên birayên xwe kurdên Êzidî ne.. Para me jî di qirkirina vê ola me a dêrîn de hebû.. Tevî ku piraniya me, bi koka xwe li vê olê vedigerin.. Pêwîste jî, ji niha şûn de her yek ji me xelkên vê olê, bîr û baweriyên wan biparêzin, Laleşa Nûranî û tev perestgeh û şûnewarên wan ji nû ve vejînin.. Alîkariya navend û saziyên wan bikin û keç û xortên wan bi xwendin bidin..

Belê di baweriya min de xwedî lêderketin, parastin, guhdan û pêşxistina xelkên me kurdên Êzidî û ola wan a dêrîn serketin û pêşketine ji tev Kurdistaniyan re.



## Komara Îslamî Yekimîn gef li ser Rojhilata Navîn

Amerîka û Îsraîlê ragihandin ku Îran yek ji mezintirîn pirsgirêke ji bo aramiya deverê û carek din jî sozên xwe di warê pêşgirî ji bidestxistina sîlahên navikî ji aliyê Îranê ve xistin rojevê.

Desthilatdarên Amerîka û Îsraîlê piştî got û bêjên xwe li Waşingtonê di daxuyaniyek hevpar de ragihandin ku pirograma navikî a Îranê ji kêleka piştevaniyên wê hikûmetê ji girûpên dijî Îsraîlî, nîgeraniyek mezin in û ew sozdar bûne ku Îranê ji bidestxistina çekên navokî bidin sekinandin. Ew mijar beşek ji got û bêjên sitratîjî ên Amerîka û Îsraîlê di hevdîtinên 6 mehî ên wan du welatan bû.

Di wê daxuyaniyê de ku bi wajoya Cihgirê Wezareta Karê Derve a Amerîkayê, "Cîmioz Iştaynbirg" û Cihgirê Wezîrê Karê Derve ê Îsraîlê, "Danîl Eyalon" hatiye weşandin, hatiye: Îran bi hevkarînekirin li gel civaka navnetewî dirêjî bi pirograma navokî a xwe dide, herweha ji giropên terorîstî piştevaniyê dike û ew yek weke nîgeraniyek mezin ji bo wan du welatan di hemû civaka navnetewî de tê hesibandin.

Di wê daxuyaniyê de hatiye: hewlên berdewam ên civaka navnetewî di warê hewlên Îranê, di riya givaş û diyalogan nebûye seba guhertina hevkêşeyên stratîjîk ên Îranê û pêşgirî ji hewlên wê hikometê bo bidestgihîştina sîlahên navokî.

Îsraîl, Îranê bi gefek şûm dizane û Amerîkayê rêberiya hewlên navnetewî ji bo givaşxistne ser Îranê di warê bernama navikî a wê de heye. Rojava di wê bawerê de ye ku ew pirogram sîvan û çetrek nixavtinê ye ku Îran ji wê pirogramê bo çêkirina sîlahên navokî mifahê distîne. Îran wê gotinê red dike û dibêje ku pirograma navikî a wê aştîxwazane ye.

Hevdîtina roja Duşemê a rayedarên Amerîka û Îsraîlê di demekê de ye ku got û bêjn aştîxwaziya Îsraîl û Felestînê seba wê yekê ku Îsraîlê nepejirand ku dorpêçên li ser Xezeyê bidawî bîne, hatiye sekinîn. Hevdîtinên nûnerên wan du welatan li ser wê pirsê nebû. Herçend nûnerên her du welatan gotine ku welatên wan li ser pêvajoya aştîxwaziya Îsraîl û cîhana Ereb sozdar in.

Her du welatan carek din ragihandin ku li ser sozên xwe ên berdewamiya hewlan ji bo pêkanîna aştiyê di navbera Îsraîl û Felestîn, Îsraîl û cîranên din ên

## Lîsteya Girtiyên Siyasî Di Girtîgeha Bajarê Urmiyê De

Nawenda serhejamriyê, belavkirin û berhemên Komeleya Çalakvanên Mafên Mirovan li Îranê, bo naskirina girtiyên siyasî ên nenaskirî di lîsteya hejmara yekem de, navên 28 kes ji girtiyên girtîgeha Newendiya bajarê Urmiyê belav kiriye.

Nûçegihaniya "Harana"yê, di vê derheqê de da zanîn, navên girtiyên siyasî ên di girtîgeha Navendiya bajarê Urmiyê de ev in:

1. Husên Xizrî, xelkê bajarê Urmiyê, bi tometa "Muharibe" bi cezayê darvekirinê hatiye mehkûmkirin.
2. Îrec Mihemedî, xelkê bajarê Mehabadê, bi tometa "Muharibe" bi cezayê îdamê hatiye mehkûmkirin.
3. Seyîdsamî Husênî, xelkê bajarê Selmasê, bi tometa "Muharibe" bi cezayê îdamê hatiye mehkûmkirin.
4. Mihemedemîn Agoşî, xelkê bajarê Pîranşarê, bi tometa "Muharibe" bi cezayê darvekirinê hatiye mehkûmkirin.
5. Ehmed Polaxanî, xelkê bajarê Pîranşarê, bi tometa "Muharibe" bi cezayê darvekirinê hatiye mehkûmkirin.
6. Elî Sadîqî, xelkê bajarê Selmasê, bi tometa hewildan li dijî tenahiya netewî, bi cezayê girtîgeha hertimî hatiye mehkûmkirin.
7. Osman Mistefapûr, xelkê bajarê Pîranşarê, bi tometa hewildan li dijî tenahiya netewî, bi 24 sal cezayê girtîgehê hatiye mehkûmkirin.
8. Ehmed Temûyî, xelkê bajarê Selmasê, bi tometa "Muharibe" bi 15 sal cezayê girtîgehê û herwiha dûrxistin bo girtîgeha Navendiya bajarê Urmiyê hatiye mehkûmkirin.
9. Bîlal Çîlegire, xelkê Bakûrê Kurdistanê, bi tometa hewildan li dijî tenahiya netewî, bi 10 sal cezayê hatiye mehkûmkirin.
10. Mistefa Elî Ehmed, xelkê Rojavayê Kurdistanê, bi tometa hewildan li dijî tenahiya netwî, bi 10 sal cezayê girtîgehê hatiye mehkûmkirin.
11. Yûsif Kakememî, xelkê bajarê Mehabadê, bi tometa hewildan li dijî tenahiya netewî, bi 9 sal cezayê girtîgehê û herwiha dûrxistin bo girtîgeha Naveniya bajarê Urmiyê hatiye mehkûmkirin.
12. Hesen Serdarî, xelkê bajarê Kirmaşanê, bi tometa hewildan li dijî tenahiya netewî, bi 3 sal cezayê girtîgehê hatiye mehkûmkirin.
13. Ebdula Husênî, xelkê bajarê Xoyê, bi tometa hewidlan li dijî tenahiya netewî, bi 6 sal cezayê girtîgehê hatiye mehkûmkirin.
14. Elî Ehmed Silêman, xelkê Başûrê Kurdistanê, bi tometa hewildan li dijî tenahiya netewî, bi 5 sal cezayê girtîgehê hatiye mehkûmkirin.
15. Husên Mîrzayî, xelkê bajarê Xoyê, bi tometa hewildan li dijî tenahiya netewî, bi 3 sal cezayê girtîgehê hatiye mehkûmkirin.
16. Fezayî Yeman, xelkê Bakûrê Kurdistanê, bi tometa hewildan li dijî tenahiya netewî, bi 3 sal cezayê girtîgehê hatiye mehkûmkirin.
17. Cibrayîl Pîrdêhqan, xelkê bajarê Xoyê, bi tometa hewildan li dijî tenahiya netewî, bi 3 sal cezayê girtîgehê hatiye mehkûmkirin.
18. Îbrahîm Ihsen, xelkê bajarê Makoyê, bi tometa hewildan li dijî tenahiya netewî, bi 5 sal cezayê girtîgehê hatiye mehkûmkirin.
19. Îbrahîm Sûrbilaxî, xelkê bajarê Makoyê, bi tometa hewildan li dijî tenahiya netewî, bi 3 sal cezayê girtîgehê hatiye mehkûmkirin.
20. Ehmed Emûyî, xelkê bajarê Makoyê, bi tometa hewidan li dijî tenahiya netewî, bi 3 sal cezayê girtîgehê hatiye mehkûmkirin.
21. Ismet Paşayî, xelkê bjarê Makoyê, bi tometa hewildan li dijî tenahiya netewî, bi 3 sal û nîvan cezayê girtîgehê hatiye mehkûmkirin.
22. Mikayîl Nîkûkar, xelkê bajarê Makoyê, bi tometa hewildan li dijî tenahiya netewî, bi 3 sal cezayê girtîgehê hatiye mehkûmkirin.
23. Kazim Murlî, xelkê bajarê Makoyê, bi tometa hevkarîkirin tevî girûpên dijberên rejîmê, bi 2 sal cezayê girtîgehê hatiye mehkûmkirin.
24. Elî Husên Endî, xelkê Bakûrê Kurdistanê, bi tometa hevkarîkirin tevî girûpên dijberên rejîmê, bi 5 sal cezayê girtîgehê hatiye mehkûmkirin.
25. Ebdulrehman Çengalî, xelkê bajarê Pîranşarê, bi tometa hewildan li dijî tenahiya netewî, bi 5 sal cezayê girtîgehê û herwiha dûrxistin bo girtîgeha Navendiya bajarê Urmiyê hatiye mehkûmkirin.
26. Ebdulselah Osmanî, xelkê bajarê Pîranşarê, bi tometa hewildan li dijî tenahiya netewî, bi 5 sal cezayê girtîgehê û herwiha dûrxistin bo girtîgeha Navendiya bajarê Yezdê hatiye mehkûmkirin.
27. Xelîl Ferheng, xelkê bajarê Urmiyê, bi tometa hevkarîkirin tevî girûpên dijberên rejîmê, bi 3 sal cezayê girtîgehê hatiye mehkûmkirin.
28. Reşîd Pêşgîr, xelkê bajarê Nexedê, bi tometa hevkarîkirin tevî girûpên dijberên rejîmê, bi salek cezayê girtîgehê hatiye mehkûmkirin.

## Roja cîhanî a xurekê û ramanek

**Keyhan Yûsifî**

Xwarin û xurek serekîtirîn û bingehîntirîn pêdiviyek mirovan e û pirraniya hizirvan û zana ev pêdawîstiye di refa herî bingehîn û girîngtirîn pêdawîstiyên mirovan pênase kirine, ji wan "Abram Mazlo" ye ku di dabeşkirina pêdawîstiyên mirovan de û di bîrokeya bi nav û deng a xwe de ji her 7 pêdawîstiyên sereke ên mirovan in ku radeya li pêşbûna wan ji bo dabînkirin û razîkirinê ji jêr ber bi jor e. Di halê yekimîn de amaje bi pêdawîstiyên "fîzyolojî" dike ku dabînkirina xurek û xwarinê ji xwe digre.

Şer bo mana wan, bi awayek din şerê nan di dîroka mirovan de faktereke rolgêr bûye ji afirandin û girij kirina pevçûn, dijayetî û êrîşa mirovan bo ser hev û rijandina xwîna hezaran mirov bi destên hevregezên xwe.

Mirov di pêvajoya dîrokê de berdewam di hewla vedîtina rêçare û rêkarek ji bo çareseriya wê pirsgirêkê û mana xw bûne. Koç û vedîtina cihwarên nû, êrîşa xelkê hejar û bê saman bo cihên dewlemend û xwedîsaman û... û piştî vekolîn û ceribandinên zanistî, hemû weke alava derbazbûn ji vê pirsgirêkê ku mirov ligel de ber bi rû ye, bikar anîne.



Aydiyolojî û şîweyên birêvebiriya welatê ku hizrên mirovan jê afirîne hertim soz û qerarên çareseriya vê pirsê dane, lê niha ç heta di sedsala derbazbûyî de jî ev rastiye derket ku bîrokeyên Sosyalîzm û Lîbralîzim jî ku îdîaya çareseriya vê birsê dikirin, heya niha bersivder nebûne heya ku "Jak Dêof" Serokê saziya Bijî û Kişt û Kalê yê Netewen Yekbûyî "Fao" di roja 15' ê Oktober ê " roja cîhanî a xurekê" de ku niha di cîhanê de "2010" 925 Milyon kes di rewşek kirîz û birsîtî û xureka nebaş de dijîn û 30 welatên cîhanê di rewşa xureka nebaş dane ku 21 ji wan Afrîqayî ne.

Karnas û xwedîhizrên wî warî jî sedema wê pirsgirêkê bi nebûna sermiyedanîna bikêr a jêrxanî di wan welatan de vedigerînin ku ew jî vedigere bo nebûna îmkanat, saman û çavkaniyên pêdvê ji bo cih bo cih kirina wî karî yan jî berpirsyarnebûna desthilata zal bi ser wan welatan de, ku di Îrana xwedî kanga û çavkaniya binerd a zaf de 14 heya 15 Milyon kes di bin hêla hejariyê de, vedigere bo nekêrî û neberpirsyar bûna desthilatdarên wî welatî ku bas ji mudêla kargêrî û birêvebiriya cîhanê dikin lê her erdeke welatê bin desthilata wan de, tijî ye ji hejarî û paremayiya abûrî û...

# Him Li Nal Dide Him Li Bizmar

## Kewê zer

Her hikûmet û rejîmek dîktator xwe bi parêzerê hemû mafên mirovî û hemû mafên din ên her însanek di welatê xwe de dizane. Desthilatên dîktator di yasaya Bingehîn a xwe de tevî wê yekê ku kêmasî û neheqiyên zaf hene, merceek din jî li serweyî wê yasayê a ku bo welatekê hatiye darêtin dadinên.

Komara Îslamî jî nîzamek dîktatore û bi hebûna hemû sifetên dîktatoriyetê, îdaya parêzeriya hemû mafan ji xelkê welatê xwe re heye. Her bi wan hizran yasaya bingehîn a welat danîne û li servey wê yasayê jî Rêber (di Komara Îslamî a Îranê de), "Îmam" merce' û biryara sereke ye. Diyare ev yek jî bila bihê gotin ku ji bo pasawanîn di dema birêvebirina neheqiyên eşkere de jî, ola Îslamê dikin îzinpêderê xwe.

Ji wan hemû kêmasî û neheqiyên yasaya bingehîn û çewaşekarî di gotinên xîmdanerê Komara Îslamî, Xumênî, emê di vir de tenê pirsa jinan bixin rojevê û ji bo vê mebestê jî me berhevdanek ji hin axaftinên damezirînerê Komara Îslamî Xumênî û hin bendên yasaya bingehîn a komara wî, herweha kiryarên wê rejîmê derheq bi jinan şirove bikin.

**Xumênî ji bo jinan wiha dibêje, lê wiha emel dike:**

Jinên Îranî di hemû qonaxên serkevtina -Şoreşa Îslamî- bi rohnî derxistine di hemû warên civakî, siyasî û...de beşdar in û bawerên olî ên wan nabe asteng li ser riya çalakiyên wan.

Herweha nîşan dan ku ligel parastina ola xwe û demanpakiyê xwe dikarin dîrokê jî çêkin.

*Raste, jinên Îranî beşdariyek çalakane di şoreşa mezin a gelên Îranê de kirin, ne di şoresa Îslamî a Îmam Xumênî de. Jinên Îranî dikarin di hemû warên siyasî, civakî û ... de beşdar bin, bi bê vê yekê ku bawerên wan ên olî yan her bawerek din bibe asteng di riya piroseya beşdarîkirin di her karek di çarçûveya welatê xwe de, herweha dikarin dîrokê jî çêkin. 31 sal dîroka jinên Îranî di welatê bin siya siyasetên Xumênî de, ev e: Di yasayê de bi 2 jinan mafê însanekê hene, ji karkirin û xwe berbijêrkirin bo postên bilind ên hikûmetî bêpar in, beşdarî di piroseyên siyasî de ji wan re tawan e, û di dema nîşandana her cure nerizayetiyekê de ji bo mafên xwe ên rewa girtin, îşkence, destdirêjiyên cinsî û îdam dibe para wan. Ji aliyek din ve îtiyad leşfiroşî, qaçaxiya keçan û jinan, telaqên neçarî û... dîroka 31 saleya jinên Îranê ye ku Xumênî di gotinên xwe ên li ser jinan amaje pê kiribûn.

**Xumênî:** Îro şêrejinên Îranî, dergoşên xwe hembêz kirine û hatine meydana miselsel û tankên dûjminên rejîmê. Di kîjan dîrokê de ew mêrxasî û cangorîtiye li jinan hatiye nîşandan?

*Berî her tiştî di bawera Xumênî de dema ku jin çelengiyê ji xwe nîşan bidin mêrxasî ye û rolê mêran bi wan tê dayîn. Wêca ew dergoşên ku wê demê di meydanên miselsel û tankan de di hembêza dayîkan de bûn, niha bi îzna Xumênî û yasaya wî di hembêza gorrên bê nav û nîşan, jorên takekesî, bendikên daliqandinê

**Xumênî:** Jinan parek mezin di bizava me ya Îslamî de hene, em tevgera xwe qerdarê jinan dizanin û tenê ew xale ji bo derxistina rolê jinan di serkevtina -Şoreşa Îslamî- de ji her peyvekê bikêrtir e.

*tekoşîna jinan diyar û berbiçav bûn di bizava seranserî a sala 1357 a rojî di Îranê de, di rastî de jinan şoreş kir ku ji mafên xwe xwedî derkevin, Xumênî dibêje xwe bi qerdar zanîna jinan di bizava 57 ê de ji her peyvekê bikêrtir e, lê di rastî de xûya bû ku



di bawera wî de tenê gotina wê peyvê ji jinan re bes e, piraktîk jê re zêde ye.

**Îmam Xumênî:** Jin xwedî bingeh û hurmetek pirr mezin in ku di hin karan de ji mêran jî pêtir in û diyare nabe ji bîr bikin ku fikrên wan, bi tewawî ji Îslama Nab hatine danîn.

*Bidawîanîna gotinên desthilatdarên rejîmê û bidawîanîna bendên yasaya bingehîn a wan bi peyva Îslamê, meydanek vala di pêşberî wan de hiştiye ji bo ku bi gotinên xwe emel nekin û zimanê xelkê olperest jî pê girê bidin û her bi vî navî zolma xwe bimeşînin. Lê ger Xumênî ji Îslamê têgihîştibe, di tu warekê de di ola Îslamê de jin ji mêran zêde ninin.

**Xumênî:** Damenên jinan debistanek in ku di wan de dibe keç û xurtên mezin perwerde bibin. Gerek jin fezîletê biperverînin heya ku zarokên we di damenên we de bigîjin fezîletê...

*Ji bo gihîştin bi îlm û zanîn û fezîletê, çi ji dest jinên Îranê hatiye bi aliyê zêde ve hewlên xwe dane. Dema ku tê zanîn pirraniya xwandevanên zanîngehan di Îranê de keçin û hewlên pirraniya wan jî dirêjîdan bi xwandina zanista mirovî ye ji bo ku xwe nas bikin û bigîjin têgihîştinek rastî, yasayên rejîma Xumênî wan ji xwandina wê zanistê qedexe dikin û waneyên li ast têgihîştina xwe a ku di çarçûveya parastina îdolojî û desthilata nerewa a xwe de cihgîrê waneyên akadîmîk dikin. Di vir de mirov nizane ku mebesta Xumênî û mektebiyên wî ji fezîletê çî ye.

**Xumênî:** Xwezayî ye ye seba vê zolma ku heya niha ji aliyê rejîma -Taxot- "Paşayetî" ve li jinan hatiye kirin, pakaneya mafê wan pêtir dibe.

*Beşek ji vê gotinê rast e. rejîma Paşayetî zolmek mezin derheq jinan dikir. Lê mebesta Xumênî ji pêtirkirina mafên jinan renge li dahênanên nû ên ji jinan re be weke hicaba neçarî, îdama çalakên siyasî û sivîl ên jin bi sûçên cur bi cur, lêxistina qamçiyan, îtiyad û destdirêjiyên cinsî û ... ku birastî ji zolma li ser jinan a didema desthilata Paşayetiyê de zêde bû.

**Benda 14, esla 3 ya yasaya bingehîn a rejîmê:** Dabînkirina mafên giştalî ên xelkê ji jin û mêran û pêkanîna ewlehiya seqayek adilane ji bo hemûyan û wekheviya giştî li himber yasayê.

*Weke diyar e yasadanerên rejîmê ji bîr kirine ku li dawiya vê bendê "ligor Îslam" ekê zêde bikin ku derfeta pasawan hebe li himber wan hemû cudayîdanan û nehiştina ewlehiya seqaya adîlane di civakê de, weke her dem tawana eslî bixin stûyê Îslamê.

**Esla 20 ya yasaya bingehîn a rejîmê:** Hemû takên millet bi jin û mêran ve xwediyê piştevaniya wekhev a yasayê ne û ji hemû mafên mirovî, siyasî, civakî, abûrî û çandî bi parastina balansa Îslamê xwedî par in.

*Di rastî de berevajî vê bendê, Komara Îslamî hemû xelik bi bê cudahî û bi neçarî mehkûm bi piştevanîkirin û pejirandina yasaya xwe kirine. Herweha di dirêjiya wê bendê de bas ji mafên mirovî, siyasî, civakî, abûrî û çandî tê kirin, lê basek ji mafê olî tune ye, belkî ola Îslamê di dawiyê de mîna çetrekê bi ser hemû wan mafan de dikşîne. Yanî siyaseta Îslamî, abûriya Îslamî, çanda Îslamî, civaka Îslamî, ku waye ji aliyekê tiştek bi navê çandên cuda cuda ên dever û netewan di wî welatî de namîne, ji aliyek din bi siyasîkirina Îslamê misoger e, xêncî vê yekê ewa jî rohn nine ku ew yasayên Îslamî ên ku ligor wan biryaran bi ser xelkê de disepînin ligor çi çiq û mezebek ola Îslamê ne. Weke tê zanîn ola Îslamê pêtirî 72 du çiqan pêk tê.

Di encam de, bi vê yasayê, Komara Îslamî ji jinan re girtîgehek mezin di welat de ava kiriye û hovane wan dixe bin givaşan û di demên tengasî de jî, yasaya Îslamî dikin çeper, lê ew Îslam ji bo kiryar û ew mafên ku ew ji xwe re rewa dizanin, ne yasaya sereke û îzna esmanî ye.

# Berpirsiyarî

ADAR JIYA
adarjiyan@mynet.com



**Em dixwazin hinekî li ser berpirsiyariya mirovan rawestin.**

Hevalên Hêja û Birûmet;

Em dixwazin hinekî li ser berpirsiyariya mirovan rawestin.

Wekî ku hûn jî dizanin, li ser rûyê vê dinê heyînê herî pêşketî kamil û gihîştî mirov e.

Her wiha li ser rûyê vê dinê heyînê berpirsiyar tenê mirov e.

Çima li ser rûyê vê dinê tenê mirov berpirsiyar e?

Ji ber ku heyînê hişmend û aqildar tenê mirov e lewma.

Îcar em hemû mirov in û em hemû jî berpirsiyar in.

Gelo em ji ber çi berpirsiyar in û ji ber çi ne berpirsiyar in?

Pêşî, em hemû ji xwe berpirsiyar in.

Peyre em ji malbata xwe, ji civaka xwe û ji neteweya xwe berpirsiyar in.

Paşê ji dem û serdema xwe û soxî jî ji tevê dinê berpirsiyar in.

Bi awayekî aşkeratir em dikarin bibêjin ku tu kes ji me nikare xwe ji ber berpirsiyariya vê dinê ya mirovî bide alî. Belê berpirsiyariya me jî li gorî rê û rêbazên civakê û rewş û awaya jiyana me teşe digire. Bo nimûne;

Hin tişt hene di destê mirov de ne. Belê hin tişt jî hene ne di destê mirov de ne.Em ji tiştên ku di destê mirov de bin berpirsiyar in.Belê em ji tiştên ku ne di destê mirov de bin ne berpirsiyar in.

Hin tişt hene bi îradeya (vîna) mirov pêk tên.Belê hin tişt jî hene ne bi îradeya mirov pêk tên.Em ji tiştên ku bi îradeya mirov pêk tên berpirsiyar in.Belê em ji tiştên ku bê îradeya mirov pêk tên ne berpirsiyar in.

Hin tişt hene bi daxwaza mirov pêk tên.Belê hin tişt jî hene bê daxwaza mirov pêk tên. Em ji tiştên ku bi daxwaza mirov pêk tên berpirsiyar in. Belê em ji tiştên ku bê daxwaza mirov pêk tên ne berpirsiyar in.

Hin tişt hene bi hemdê mirov pêk tên.Belê hin tişt jî hene bê hemdê mirov pêk tên.Em ji tiştên ku bi hemdê mirov pêk tên berpirsiyar in. Belê em ji tiştên ku bê hemdê mirov pêk tên ne berpirsiyar in.

Hin tişt hene li ba (digel) mirov pêk tên.Belê hin tişt jî hene ne li ba mirov pêk tên.Em ji ber tiştên ku li ba mirov pêk tên berpirsiyar in.Belê em ji ber tiştên ku ne li ba mirov pêk tên ne berpirsiyar in. (wekî şahidî û hin tiştên din)

Bi rastî gelek tişt jî di destê mirov de ne.

Wekî mînak.

Rûmet û serbilindayiya mirov di desetê mirov de ye.

Bêxîretî û serberjêriya mirov di destê mirov de ye.

Başî û xerabiya mirov di destê mirov de ye.

Serkeftin û binketina mirov jî di destê mirov de ye.

Bi kurtayî her tiştê baş û nebaş ji mirov sadil dibe. Mirov hem dikare xwe li xerabiyê girêbide.Û hem dikare xwe di riya başiyê de feda bike.

Belê mirov tenê ne ji ber liv û tevgerên xwe, her wiha ji ber sererastkirin û edilandina çewtî, şaşî û xerabiyên vê dinê (yên mirovên din) jî berpirsiyar e.

Her çendî ku pêşiyan gotibin, “Mî bi lingê xwe û bizin bi lingê xwe tê daleqandin.” jî, ji ber ku em mirov in(em ne mî û bizin in), em hem ji ber kirinên xwe û hem jî ji ber kirinên hevalên xwe berpirsiyar in.

Kaniya Helbestan

# Sibehên Çolistanê



**Ehmedê Huseynî**
**ehmedehuseyni@live.co.uk**

**1.**

**Vê sibehê,**
**rex û aliyên evînê ji xwe re hetahetayê bibe**
**û mija ji kovanê ji min re bihêle, nameyên ronahiyê bi agirê bendemanê bişewitîne,**
**xwedawendan ji dilê xwe bavêje, xewnên xwe ji bîr bike,**
**stirana sibehê bi lêvên xwe bikuje, bagerê bi bazbenda xwe binixumîne,**
**sere min deyne ser çoga xwe**
**û birînên min bi çîrokên xwe yên êşbar derman bike!**

**2.**

**Vê sibehê, sîberên we yên ji hesin di çavên min de direqisîn, kêlên we yên ji keskê bêrîkirinê di payîza min de wek çurisîna xwîna Firatê diçurisîn. Bagerê; rûpel bi rûpel, bendemana min di pirtûka xwe de dinivîsand. Bîna berbangê ji darbestên wan û bîna şevbuhêrkan ji darên goristana wan dihat. Li kulîlkên zuha yên li ser devê sînoran, li pasvanên mirinê û li esmanên jiyanê dinêrîn, êşên xwe yên mezin li pey xwe dihiştin û dîsa di sîberên xwe de wenda dibûn!**

**3.**

**Vê sibehê dê payîz di dergûşa peyvan de dest bi lorîkên dirêj bike, dê zemawendên şkestinê di xewna te de, di daristanên bêzariya te de, mîna hespên sergerdan bibezin û dê gulên zer ên di destê qedera te de bilerizin. Payîz, wek ku mirin be li vir e, çûkên westiyayî xwe davêjin hêlînên porê te, tembînameyên zersosinan li ser lêvên te dirizin û çemekî zer ji laşê te ber bi rojê ve diherike!**

**Vê sibehê**
**ji welatekî pirtir,**
**ji şevistanê tarîtir,**
**ji evînê wêdetir,**
**di çolistana paytext û dûrgehan de dixeniqim**

Shavchra.com

# Pêlên dengê Cigerxwîn di nav xwîn û agir de



**Ceifer Mubeşirniya**

Şiyan, hizrîn, zanîn, nivîsandin, peyv, evîn, hez, nefret û her hestek din ên mirovan di dîrok, îro û pêşerojê de, ji bo ku bihên şîrovekirin û nîşandan, dibin deng û tên ziman. Carna dengên xurt, carna dengên nerm û hin caran jî bi dengên bêdengiyê xwe vedizelînin û di guhên dil de di çirpînin û ji xwe re navek derdikin. Yek ji wan dengên nebihîstî ên ku di hundirê xwe de cîhanek taybet a tijî şiyan, hez û evîn, peyv û hevok, helbest, stranên gelerî, destanên mêrxasiyê, serpêhatiyên berê yên gelê me û hestên şoreşgerî, li gundek hejar ê bi navê Hesar li bakûrê Kurdistanê de veşartî bûn. Lê pengurî bûn û ji şoreşeke xurt a wêjeyî pêgiran bû. Şêxmûs kurê Hesenê cotkarê hejar li gundê Hisarê li Kurdistana bakûr hat dinê.

Ew zarokek nexwandevan û di jiyanek sade a gundî da temenê xwe yê zaroktiyê derbaz dikir. Wî li temenê 15 saliya xwe de bav û piştî salek din jî dayîka xwe ji dest dan û xweşka wî ew bir bal xwe heya heyamekê û wî di 17 saliya xwe de dest bi xwandina olî kir. Di 4 sal xwandina olî û geryan di deverên Kurdistanê de, Şêxmûs gellek tişt bi çavên xwe dîtin û wêca hêdî-hêdî dengê xwe derxist û ligor zanyariyan wî di temenê 21 saliyê de dest bi nivîsandina helbestan kir û hevdem xwandina xwe ya olî jî didomand û çend salan li Kurdistana Sûryê, Îraq û Îranê jî li xwendinê geriya û rewşa jiyan, êş û azarên gelê Kurd ji nêzîk ve dîtin.

Wê demê bû ku dengê xwe xurttir kir û bi wan hest û taybetmendiyên ku bi salan bû di hundirê xwe de veşartibûn, ji xwe re navek taybet derxist û Mela Şêxmûs bû Cigerxwîn, Cigerxwînê ku liber wan êş û azarên gelê xwe û têkiliyek ji hestên siyasî bi taybetî ku wê demê hevdem bû ligel têkçûna şoreşa Şêx Seîdê Pîran û bandora pêtir a wê zulmê derheq Kurdan li ser Cigerxwîn ku derbazî cîhana siyasetê bibe, ew nav ji xwe kir û mîna bahozekê bi bandor di nav wêjeya Kurdî û bi xistne rû ya guriya di hundirê xwe de bi dengeke zelal di geşkirina peşqela şoreşên din ên Kurdî de derket holê.

Her di wan salan de piştî têkçûna serhildana şêx Seîd û bidarvekirin û girtina piraniya birêveberên wê şoreşê û der bi der bûna hejmarek din ji wan, Cigerxwîn ew zulma ku di zaroktiya xwe de li derheq kurdan bihîstibû wê carê bi çavên xwe dît û ligel wê rewşê dest û pence nerim kirin, hestên wî ên netewî xurtir bûn û ew ji bo ku ji ketina pêvajoya şoreşên Kurdî re bibe pêşmalek bihêz, bû endamê rêxistina Xoybûn a ku ji aliyê rewşenbîrên Kurd ku piştî hiloşîna Empiratoriya Osmanî tepeserkirina serhildanên kurdî ji aliyê mîratgirên wê Empiratoriyê li Bakûrê Kurdistanê penaberî Sûriyê bibûn hatibû damezirandin, xebata xwe ya siyasî dest pê kir.

Li wir di sala 1927' an de keça xalê xwe Kehla Selîm ji xwe re tîne û li Amûdê cihgîr dibin.

Cigerxwîn hevdem sê barên giran li ser milên xwe pejirandibû. Helbestvanî, xwandina olî, xebata siyasî. Wî di sala 1928' an de xwendina xwe qedand û îcaza xwe wergirt û bû mela û her di wê salê de dîwana xwe ya yekemîn nivîsand, "lê ew dîwan winda bû û ligor gotinan di salên dawî de hatiye peydakirin lê heya niha nehatiye çapkirin".

Di sala 1937-1938' an de, Cegerxwîn û hevalên xwe Nadiyek-Komelak li bajarê Amûdê ji xortên kurd re vekirin û ew komela pir baş karê xwe meşandibû, lê bi têkiliya hin mirovên nezan û neyar Firansiyan ew komele girt.




**Bilbilê dilkul dinalî,**
**Her li ser dêmên gulê,**
**Gul çi zanî ku li ser kê**
**Wer dinalî bilbil e?**

**Pertewa dêmên sipî**
**Carek li dil ku ew nedî**
**Çend bikî qêrîn û zarî**
**Kî dizanî dil kul e?**

Lê navhatî tu car lawazî û bêmoralî nas nekir û di sala 1946' an de mala xwe ji gund bar kir û çû bajarê Qamişlo û li wir bi kûrî çû nav behra siyasetê û di wê salê de Civata Azadî û Yekîtiya Kurd hate avakirin kû Cigerxwîn dibe Sekreterê wê civatê. Du sal piştre seba xurtbûna fikrên Marksîstî belavbûna Komunîzmê di nav biyavên mafxwaz ên welatên cemsera rojhilat de, ew bûye endamê Partiya Komunîst a Sûryê û piştî salekê ew bo yekimîn car hat girtin. Piştî serbestberdana wî li sala 1954' an ji aliyê partiya Komunîst a Sûryê ve dibe berbijêrê Perlemana wî welatî.

Di sala 1957'an de seba xurtbûna xebata netewî û avabûna partiyên mudern di nav gelê Kurd de, Cegerxwîn ji komonîstan veqediy û di wê salê de ew û hevalên xwe rêxistina Azadiyê ava dikin û piştî heyamekê rêxistina han bi Partiya Dîmokrat a Kurdî re dikin yek û bi wî awayî Cigerxwîn ket ser hêla xebateke micidtir a netewî û çendîn car penaber û der bi der dibe û hevdem nivîsa xwe jî didomîne heya sala 1973' an diçe Libnanê û dîwana xwe ya bi nav û deng Kîme Ez? Û çîroka Salar û Mîdya li wir çap dike. Her di wê salê de Cegerxwîn tê Sûryê û ji wir jî direve û diçe Siwêdê û pênc salên dawî ên temenê xwe li Siwêdê derbas dike.

Roja 22.10.1984 an li bajarê Stockholmê Cegerxwîn serê xwe danî û çû ser dilovaniya xwe

Cigerxwîn qasî neh dîwanên helbestan nivisînandine. Ji wan heşt dîwan hatine çapkirin.

Navê dîwanên Cigerxwîn ev in: "Prîşk û Pêtî, Şam, 1945", "Sewra Azadî, Şam, 1954", "Kîme Ez, Bêyrûd, 1973", "Ronak, Stockholm, 1980", "Zend-Avista, Stockholm, 1981", "Şefeq, Stockholm, 1982", "Hêvî, Stockholm, 1983", "Aşitî, Stockholm" 1985.

Xêncî wan dîwanan Cigerxwîn 12 nivîsokên din ên çapkirî hene û 6 berhemên din ên wî jî hê nehatine çapkirin.

Di 81 sal temen de, 60 salan gaziya welatparêziyê, xurtkirina ziman û wêjeya netewî, Cigerxwîn bû çavkanî û kane ji nivîskar, helbestvan û sitranbêjên gelê xwe û dîroka wî gelî bi xwe ve xemiland. Ew bûye mêrê sedsala agir û xwîn a gelê Kurd. Helbestvan, Siyasetvan û Edîbê bi nav û deng yê Kurd, Mela Şêxmûsê berê û Cigerxwînê sedsala 20 an û îro û sibê û hertim, di hewşa mala xwe de li bajarê Qamişlo yê hatiye veşartin. Seydayê mezin du kur û çar keç û herweha nizîkî 30 neviyan li dîv xwe hiştine.

agiri

Duheftînameyek siyasî, civakî, çandî û hunerî ye ku Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne

http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/index.php
Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.
Navnîşana derveyî welat:
AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE

E - Mail: agiri2003@hotmail.com
agiri2003@gmail.com, rojnamaagiri@gmail.com

## Di Nav 4 Salan De 76 Hezar Îraqî Hatine Kuştin

Arteşa Amerîkayê ragihand ku di navbera salên 2004-2008'ê de 76 hezar Îraqî hatine kuştin.
Rojnameya Washington Postê ragihand ku li gor raporeke arteşa Amerîkayê di navbera salên 2004-2008'ê de ji ber kiryarên tundûtujî 76 939 Îraqî hatine kuştin.



Li gor wê nûçeyê, amara ku ji aliyê arteşa Amerîkayê ve hatiye ragihandin ji amarên hikûmeta Iraqê kêmtir in.
Li gor Wezareta Mafê Mirovan a Iraqê di navbera salên 2004-2008'ê de 85 hezar û 694 welatiyên sivîl ên Iraqê jiyana xwe ji dest dane.
Her li gor rapora arteşa Amerîkayê di nav wan 4 salan de 121649 welatiyên sivîl jî birîndar bûne.
**Dengê Azad**

## Dagîrkerê Cîhanê: Înternet




Yekîtiya Telekomunasyonên Navneteweyî ya Neteweyên Yekbûyî da xuyakirin ku li gelemperiyê cîhanê bikarînerên înternetê bûn 2 milyar kes .Ew jî ji 3/1 nufusa cîhanê ye. Li gor rapora ajansa Neteweyên Yekbûyî ya ITUyê, hejmara bikarînerên înternetê di nava 5 salên dawiyê de bû 2 qat. Li cîhanê 6.9 Milyar mirov dijîn û bikarhênanê Înternetê ji 2 milyarê zêdetir bûn. ITU daxuya kirin ku 226 mîlyon kes bikarînerên nû ne û ji wan 162 mîlyon ji welatên pêşketî de ne.
Heta dawiya sala 2010an ji %71ê mirovên welatên pêşketiyê girêdayiyê înternetê bibin. Li welatên ber bi başiyê diçinê jî zêdebûna bikarînerên Înternetê jî %21 e. Li gor ITU yê lezgîniya xeta înternetê ji bo mezinbûna aboriyê jî pir girînge.
Sekreterê Giştî yê ITU Hamadun Touré da zanîn ku lezgîniya Înternetê ji bo pêşketin û mezinbûna aboriyê di rolekî girîngê de ye û ji bo lezgîniya înternetê sektorên cur be cur vedibin û di wan sektoran de jî gelek kes têne wergirtin. Ji ber vê yekê jî reqabeta aboriyê jî fireh dibe.
Gîhandina înternetê li gor herêman jî digûhere ,li Ewropayê ji %65 li Emerîkayê ji %55, li Asyayê ji % 21.9 û li Efrîqayê jî ji %9.6 e.

## Enistîtoya Ehmedê Xanî Kete Ber Gefa Daxistinê



Enistîtoya Ehmedê Xanî li bajarê Urmiyê ji aliyê Wezareta Çand a wî bajarî ve kete ber gefa daxistinê.
Nûçegihaniya Kurdistanê serbarê ragihandina vê nûçeyê da zanîn, piştî ku berpirsên Enistîtoya Ehmedê xanî bi armanca berfirehkirina çalakiyên xwe daxwaz kirin ku enistîtoyeke navnetewî a zimanê Kurdî li bajarê Urmiyê bihê damezirandin, wezareta Çand a bajarê Urmiyê jî gef ji wan xwar ku dê enistîto bihê daxistin.

Hêjayî gotinê ye ku Enistîtoya Ehmedê Xanî, heyamê nizîk 11 salan berî niha, bi tekoşîna komek zaf ji wêjevan, nivîskar, mozîsiyen û helbestvanên kurd ên bajarê Urmiyê hate damezirandin û zêdetir di warê kultor û wêjeya Kurdewarî de dixebite û heya niha tu alîkariyek ji aliyê karbidestên rejîmê ve wernegirtiye.

## Piştgiriya Obama Kêm Dibe

Li Amerîka di derbarê piştgiriya xelkê ji Obama re lêpirsînek hate kirin. Li gora vê lêpirsînê pişgiriya ku xelkê Amerîka sala 2008-ê dayî Obama û ew bûyî serokê Amerîka, roj bi roj kêm dibe.



Li gora lêkolînekî kesên ku sala 2008-ê deng dayîn Obama niha hilbijartin çêbibe, dê ji wan % 67 cardin dengê xwe bidin demokratan, lê her ji wan kesan ji % 8 dengên xwe bidin partiya Komarîxwazan û ji % 21 jî nizanin dê dengên xwe bidin kî û bê biryarin.
Lê hêjî pişgiriya ku ji Obama re heyî % 82 berdewame. Ev jî delîleke ku Obama hejî kesê herî populere li Amerîkayê.